

# BUROYA KURDÎ

## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 86 - Hezîran 2012**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet.

# XEBATA BUROYA KURDÎ

## *GULAN 2012*

**KONFÊRANS**



**KURDISTANA ÎRANÊ, REWŞA GIŞTÎ**

***20.05.2012 :*** Behadîn Ibrahîmî kurteya lêgerîneke xwe li ser Kurdistana Îranê kir. Wî ew di 4 beşan de veqetand : 1- Çima konfêranseke weha ? Ji sedema rewşa nuha ya gelek tevlihev li Rojhilata Navîn. 2- Îran û Kurdistana Îranê : rewşa erdnigariyî (coxrafî), jimara gelhe (xelk) û bajarên kurdî. 3- Dîroka navçeyê û desthilatên herêmî berê şerrê Çaldiranê di 1514 de, dema ku Kurdistan ji aliyê imperatoriyên farisî û osmanî di du perçan de hat veqetandin. Sedemên piştgiriya hin serokên kurd ji Sultan Selîmê Osmanî re. 4- Nêrîna Farisan li ser Kurdan, nepejirandina axeke bi navê Kurdistanê û dîtina Kurdan weka gelheyeke piçûk û zimanê kurdî weka zaravekî farisî. 5- Parêzgehên (wilayet) Kurdistana Îranê (Urmiye, Sine, Kirmanşah, Ilam). 6- Kurteya çalakiyên partiyên ramyariyî (siyasî) yên kurdî li vê beşa Kurdistanê.

**HEVKARÎ BI RÊXISTINÊN DIN RE**

***26.05.2012 : Minderhedenforum (Foruma Hindikayiyan) : Onze Toekomst (Pêşeroja me)***
Ev rasthatina duyemîn bi rêxistinên ku endamên Minderhedenforum in re bû. 3 babet (thèmes) hatin giftûbêj (munaqeşe) kirin : welatvaniya (citoyenneté) çalak (aktîf), perwerde û jiyana hevrayî.

**BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN Û SAZENDEYAN**

***12.05.2012 : Centre d'Action Laïque (Navenda Çalakiya Laîk « sêkulêr") : Konfêrans : Û eger em li ser Islamê bipeyivin ?***
Tê de ev kesahî (şexsiyyet) peyivîn : Pierre Galand, serokê CAL ; Tariq Ûbrû, Rektorê Mizgefta Bordeaux (Fransa) û John Paul Lepers, rojnamevan û fîlmçêkerê filma belgeyî "Kî ji Islamê ditirse ?". Piştre, giftûbêjek bi birêvebiriya (idare) rojnamevan Gabrielle Lefèvre bû.

## *31.05.2012 : Nimîndendetiya Hukûmeta Kurdistana Iraqê li Bruksêlê (KRG) : Bilindkirina Ala Kurdî li ber avahiya xwe*



Bi destûra fermî (iznê resmî) ya hukûmeta Beljîka, nimînendeyê (temsîlcî) Hukûmeta Herêma Kurdistanê li bal Yekîtiya Ewropî, Selîm Giravî, gelek kes vexwendin (dawet kirin) beşdarbûna bilindkirina ala kurdî li ber avahiya vê nimînendîtiyê li Bruksêlê. Di merasîmê de, mêvanên germ sirûda neteweyî ya kurdî, Ey Reqîb, stira û gelek li çepikan xist. Piştre, xwarineke kurdî ya dewlemend li bexçeya bedew ya vê nimînendetiya ku li taxa balyozxaneyan (sefartxane) ya Avenue Franklin Roosevlt, li bin taveke xweş, hat pêşkêş kirin. Nêzîkî 100 Kurdên ji her çar perçeyên Kurdistanê û ji Yekîtiya Sovyîtî ya Berê amade bûn.

Ev bûyer dîrokî ye, ji bo ku ev cara yekemîn e ku welatek li cihanê bi awakî fermî (resmî) dipejirîne (qebûl dike) ku bi awakî vekirî Kurdistana Iraqê nas bike. Ala kurdî li ber avahiyên vê nimînendetiyê li Swîsra û Ostralya jî hatiye bilind kirin, lê ne bi awakî fermî.

Ala kurdî ya nuha di sala 1919 de li Istanbulê ji aliyê rêxistina kurdî “Kürt Teşkilati Ictimaiye Cemiyeti” (Rêxistina Pêkanîna Civakî ya Kurdî), ku serxwebûna Kurdistanê dixwest, hat afirandin. Ew ji aliyê 12 Kurdên Tirkiye û Iraqê, ku ji wan Ekrem Cemîl Paşa, bavê Pervîn Cemîl, seroka Buroya Kurdî, hati bû ava kirin. Ji wê gavê de, ev al ji aliyê hemî Kurdan bi awakî tabîî (spontan, bê fermana resmî) hatiye pejirandin (qebûl kirin, xwedî lê derketin). Li nîvê vê alê tavek, sembola zerdeştiyê, ola kevn a Kurdan ku li ser bingeha dualismê (du hêz : qencî û xerabî) hatiye ava kirin, heye. Ev ne semboleke olî (dînî), lê neteweyî ye, ji bo ku rêzayê (ma’na) tav jiyan, ronahî, dadî (heqqî) … ye.

Eger em werin sirûda neteweyî ya kurdî, ew di destpêkê de, di 1946 de, helbesteke (şiir) ku ji aliyê helbestvanê cuhan Dildar, li ber gora Qazî Muhammed, serokê Komara Kurdî ya Mahabadê, li Kurdistana Îranê, ku di 1946 de tevî 46 hogirên xwe ji aliyê hukûmeta îranî hat îdam kirin, hat xwendin bû. Ji wê gavê de, hemî Kurd ev helbest bi awakî tabîî “spontan” kir sirûda neteweyî. Vaye destpêka sirûdê :

*Bi soranî :*

***Ey reqîb her mawe qewmî kurd ziman***
***Nayşikênê danerî topî zeman***
***Kes nelê Kurd mirduwe, Kurd zînduwe***
***Zînduwe qet nanewê alakeman***

*Bi kurmancî :*

***Ey reqîb her, maye qewmê kurd ziman***
***Naşikê û danayê bi topê zeman***
***Kes nebê Kurd dimirin, Kurd jîn dibin***
***Jîn dibin qet nakevê ala Kurdan***

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

*GULAN 2012*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**DIBISTANA DAYIKÎ BI KURDÎ**
Şaredariya Sûrê, ya bajarê Diyarbekirê, dibistaneke dayikî bi kurdî vekir. 16 zarok tê de bi kurdî tên perwerde kirin û amade kirin ku biçin dibistana seretayî (ilk okul, ibtidaî). Ev dibistan bi înîsyatîva Navenda Piştgiriya Jinan vebû. Şaredarê Sûrê, çû seredana wê û bi zarokan re bi kurdî peyivî. Ev cara yekemîn e ku dibistaneke kurdî li Kurdistana Tirkiyê vedibe. Kurd dixwazin ku perwerde bi zimanê wan, ji dibistana dayikî heta zanîngehê, di destûrê de bê nivîsîn.
*(nefel.com, 01.05.2012)*

**VEGERA BERPIRSIYARÊN "BDP"ê JI AMERÎKA**
***Di 30 Nîsan 2012 de***, şanda partiya kurdî « BDP »ê, piştî ku hefteyek çû seredana Amerîka (li bultena me ya buhurî, N° 85, binêre), vegeriya Tirikiyê. Li firokexana Istanbûlê, serokê BDPê, Selahattin Demirtaş, got ku ev seredan erênî (pozîtîf) bû. Hev-seroka vê partiyê, Gülten Kışanak, jî ji rojnama Radikalê re got ku nuha berpirsiyarên amerîkî pirsa kurdî baştir têgihajt.
*(nefel.com, 01.05.2012; avestakurd.net, 01 û 03.05.2012)*

**100 ROJNAMEVANÊN KURD LI ZÎNDANÊ NE**
***Di 03 Gulan 2012 de,*** di roja cihanî ya azadiya çapemeniyê de, weşankerê ajansa nûçeyan Dicle (DIHA), Abdurrahman Gök, daxuyand ku li Tirkiyê 100 rojnamevanên kurd, ku ji wan ên ajansa wî, li zîndanê ne û azadkirina wan xwest. Wî got jî ku piraniya wan di dema tevgerên polîsî li dijî KCKê (Rêxistina Civaka Dêmokratîk, ku girêdayî PKKê ye) de hatin ragirtin û ku par 68 rojnamevan hati bûn ragirtin.
*(nefel.com, aknews.com, 03.05.2012)*

**PKK Û IMKANA AVABÛNA DEWLETEKE KURDÎ LI IRAQÊ**
Di demên dawîn de, ji sedema têkçûna (xerabûn) pêwendiyên hukûmeta Kurdistana Iraqê bi hukûmeta fêdêral a iraqî li Bexdadê, her ku diçe bêtir li ser ihtimala serxwebûna Kurdistana Iraqê tê peyivîn. Li ser vê babetê (konu, mevzu), yek ji avakerên PKKê û endamê KCKê, Cemil Bayık, ji ajansa ANFê re daxuyand ku ew bêtir dixwaze (tercîh dike) ku Kurd mafên xwe di çarçeva dewletên dêmokratîk de, ne xerxwebûnê, bistînin ! Û wî got jî : *"Ev e felsefa me û siyaseta me ya giştî" !(avestakurd.net, 04.05.2012)*

**TUNDIYA LI DIJÎ JINANAN LI KURDISTANÊ KÊMTIR E**
Bin-encumena tundiya (şiddet) li dijî jinan û ya malbatê, ya encumena mafên mirov li parlementa Tirkiyê, rapporek li ser vê tundiyê di navbera salên 2008 û 2011 de weşand. Di vê rapporê de xuya dibe ku bi giştî jimara jinên ku qurbanên van tundiyan in li Tirkiyê ji Kurdistana Tirkiyê bilindtir e. Vane rêjeyên (nisbet) li tevayiya bajarên Tirkiyê : Bilecik (33 ji 1.000), Xarput (Harput, li Kurdistanê : 32 ji 1000), Isparta (28 ji 1000), Karaman (20 ji 1000), Denizli (20 ji 1000), Bartin (20 ji 1000).

Bajarên ku tê de tundî kêmtir in ev in : Istanbul, ku tê de 12 milyon û 624.000 kes dijîn, di rêza 65mîn de ye, Ankara 46mîn, Izmir 17mîn. Li Trabzonê, ev rêje 5/1000 e. Eger em werin bajarên Kurdistanê : Elih (Batman) (0.1/1000), Colemêrg (Hakkari) (2/1000), Şirnex (Şırnak) (3/1000, Wan (Van) (3/1000, Bedlîs (Bitlis) ( 3/1000, Çewlik (4/1000) û Mardin (5/1000).
*(rudaw.net, 05.05.2012)*

**XWEKUŞTINA SERBAZAN**
Wezîrê tirk ê parastinê, Ismet Yılmaz, bersîv da parlementerê Malatya yê partiya CHPê, Veli Ağbaba, û jê re got ku di deh salan de, ji 2002 heta 2012, 934 serbaz (esker) tecrube kirk u xwe bikujin û ku 470 ji wan mirin. Wî got ku sedemên vê yekê *"aksîdanên (kaza) çekan, hestê (hiss) ku ew di leşkeriyê de bê feyde ne, aksîdanên erebeyên leşkerî, aksîdanên kar, xwekuştin"*.
*(rudaw.net, 05.05.2012)*

**ŞAREDAREK TÊ TAWANBAR KIRIN**
Şaredarê Patnosê, Yusuf Yılmaz, cezayê 7 sal û 3 meh zîndan stend. Ew bi endambûna rêxistinekê (PKK) û bi dijayetiya polîsan hatiye tawanbar (bi sûc) kirin. Dadgeha cezayên giran a Erzurûmê daxuyand ku di 2011 de Yılmaz axaftineke piştgiriya PKKê (HPG: Hêzên Parastina Gel), ku li Qilabanê, li nêzîkî Şirnexê, kiri bû.

Di parastina xwe de, Yılmaz got ku dema ku wî ev axaftin weka şaredar (serokê belediyye) kir, tu pevçûn ne bû, tu kevvir ne hat avêtin û tu can ne hat şikenandin. Û wî got jî ku ewê xwe biparêze.
*(rudaw.net, 05.05.2012)*

**DI SÊ MEHAN DE 98 ZAROK HATIN KUŞTIN Û 108 BIRÎNDAR KIRIN**
Li gora rappora Weqfa Koçbûnê (Göç Vakfı) li ser pelixandina mafên zarok, li Tirkiyê di sê mehan de 98 zarok hatin kuştin û 108 birîndar kirin. Ev yek li gel ku Tirkiyê lihevkirina UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) li ser mafên zarokan wajo (imza) kiriye. Rappor dibêje jî ku li navendên girtina zarokan, ew ji aliyê irq, ol (dîn), çand û ziman tên pelixandin. Û wê got jî ku di navbera 1988 û 2011 de, 433 zarok ji aliyê hêzên polis hatin kuştin. Piraniya van zarokan ji Kurdistanê ne.
*Avestakurd.net, 05.05.2012)*

**DI 1937 DE ÇEKKÊN ŞÎMÎK HATIN BI KAR ANÎN**
***Di 05 Gulan 2012 de***, Rêxistina Rûniştevanên Dersîmê (Tünceli) li ber parlementa tirkî xwe pêşan da (meşiya), ji bo bîranîna nijadkujiya (qetliam) Dersîmê ya 1937. Serokê vê rêxistinê got ku di 1937 de, serokê navdar ê serhildana Dersîmê, Seyid Riza, nameyek ji Civaka Neteweyan (UN'a wê gavê) re nivîsî û tê de got ku Tirkiye çekên şîmîk (kîmyayî) li Dersîmê bi kar tîne. Serokê rêxistinê got jî ku divê ku Tirkiye bexişandinê (efû) ji bo vê nijadkujiyê bixwaze.
*(rudaw.net, 06.05.2012)*

**RAGIRTINÊN GIRSEYÎ**

***Serbaz tên tawanbar kirin***
Di çarçeva jêpirsînên ku di 28 Sibat 2012 de destpê kir de (li bultenên me yên buhurî binêre), Dozkarê (savcı, prokuror) Komarê yê Ankara fermana ragirtina 18 serbaz (esker) û efser (zabit), ku 6 ji wan hîn kar dikin, da. Ev pêla 4mîn a ragirtinan e. Jimara serbazên ku ji 28 Sibat 2012 de hatin ragirtin gihajtiye 51.
*(netkurd.com, 08.05.2012; rudaw.net, netkurd.com, 10.05.2012)*

***Di 28 Gulan 2012 de***, di tevgereke leşkerî li dijî serbazan de, 8 gênêral, ku hin ji wan xanenişîn (teqa'ud) in, hatin birin dadgeha Ankara ji bo jêpirsînê. Ev yek di çarçeva doza (da'wa) "Balyoz"ê (tecrubekirina darbeyeke leşkerî) de.
*(rudaw.net, 28.05.2012)*

***Cuhan tên ragihandin***
***Di 08 Gulan 2012 de***, polîsê tirkî bi şev ket nav avahiya Komeleya Ciwanan, derî şikand, gazên hêstirrêj avêtin û 9 xwendekarên cuhan ên zanîngehê, ku ji wan 4 keç, bin çav kirin.
*(09.05.2012)*
***100 kes tên ragirtin***
***Di 08 Gulan 2012 de***, tevgerên polîsî li 10 bajarên Tirkiyê, ku ji wan Ankara, Istanbul, Mersin û Izmir, li dijî partiya çepê tûj, DHKP-C (Partiya Azadkirina Gelê Şoreşger) bûn. Ji 100 kes bêtir hatin bin çav kirin.
*(avestakurd.net, 13.05.2012)*

***40 kes tên ragirtin***
***Di 15 Gulan 2012 de***, di çarçeva tevgerên li dijî KCKê (Komela Civaka Dêmokratîk) de, nêzîkî 20 endamên Cuhanên Dêmokrat û Welatparêz li Istanbulê hatin ragirtin û 20 kesên din jî, ku ji wan berpirsiyarên partiya kurdî BDPê, li Wanê hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 15.05.2012)*

***17 serbaz tên ragirtin***
17 serbaz, ku ji wan yekî xanenişîn (teqa'ud), hatin ragirtin ji bo ku ew keti bûn nav malekê, li gundê Buğulukaynakê, li nêzîkî Wanê, û tê de du endamên PKKê û cuhanekî sîvîl, ku ji aliyê van der du PKK hati bû revandin, kuşti bûn. Ji sedema kuştina sîvîlekî, vekolînek (ankêt) dest pê kir.
*(netkurd.com, 23.05.2012)*

***35 kes tên ragirtin***
Tevgereke fireh a polîsî li malan de, li dijî KCKê (Komela Civaka Dêmokratîk), di heman (eynî) demê de li Ruha (Urfa), Izmir û Diyarbekirê bû. Bi giştî, 35 kes, ku ji wan du alîkarên şaredarê Wêranşarê (Viranşehir) û cîgirên serokê beşa Wêranşarê ya partiya kurdî BDPê, hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 28.05.2012)*

***10 kes tên bin çav kirin***
***Di 30 Gulan 2012 de***, di tevgerek polîsî li malan de, li navçeya Mêrdînê, 10 kes hatin bin çav kirin. Ew endamên encumena şaredariyî ya Mêrdînê û endmaên BDPê bûn. Ev yek bi fermana dozkarê (savcı, prokuror) komarê yê Mêrdînê. Polîs gelek CD, kompyûter … Stendin.
*(netkurd.com, 30.05.2012)*

**DAXUYANIYÊN WEZÎRÊ SWÊDÎ YÊ KARÊN DERVE**
***Di 08 Gulan 2012 de***, wezîrê swêdî yê karên derve, Carl Bildt, bersîv da pirsên hin parlementeran li parle

menta swêdî, yên li ser pelixandinên mafên mirov li Tirkiyê. Li ser ragirtina rojnamevanan û pirsa kurdî, wî got ku divê ku Tirkiye pergala (nizam, sîstêm) xwe ya huqûqî biguherîne û bi partiya kurdî BDPê re bêtir dyalogê bike. Li ser Abdullah Öcalan, serokê PKKê ku li zîndanê ye, wî got ku ew serokekî têrrorîst e û ku bi têrrorîsmê hat tawanbar kirin. Û wî got jî ku PKK bi rejîma sûrî re hevkariyê dike.
*(nefel.com, avestakurd.net, 10.05.2012)*

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ**
***Di 11 Gulan 2012 de***, leşkerê tirkî navçeyên sînorî yên Kurdistana Iraqê bombe kirin, ji bo lidûketina PKKê.
*(Çapemeniya kurdî, 12.05.2012)*

**CARDIN PÊTROL LI KURDISTANÊ**
Şirketa amerîkî ya pêtrolê, Transatlantic, dest bi derxistina baştirîn pêtrol kir. Ew di çar bîrên ku li navenda gundê Taşlıderê, li navçeya Elihê (Batman), hatin kolandin hat dîtin.
*(rizgari.org, 13.05.2012)*

**ENCAMA ŞERRÊ LI DIJÎ PKKê**
Li gora jimartinên (statîstîk) birêvebiriyên giştî yen jandarma û ewlehiyê, ji 1984 heta 22 Hezîran 2010, 6.653 serbaz û polîs di şerrê li dijî PKKê de mirin. Ji aliyê PKKê jî 29.639 kuştî û 4.937 birîndar bûn. Di heman (eynî) maweyê (muddet) de, 5.687 sîvîl hatin kuştin. Di 26 salan de, bi giştî 21.615 kes birîndar bûn. Li gora hin analîstên aborî (êkonomîk), xesara aborî li Kurdistanê 300 milyar dolar derbas kir.
*(rudaw.net, 14.05.2012)*

**RAGIRTIN Û REVANDIN JI ALIYÊ PKKê**

***Ramyarek tê ragirtin***
Dema ku Veysel Çelik, berpirsiyarê partiya desthilatê, AKPê, li Qulpê, li nêzîkî Diyarbekirê, ji Mûşê vedigeriya, ew ji aliyê çekdarên PKKê hat ragirtin. Ji derveyî (xeynî) wî, vê partiyê serokê qezayekî, 3 serbaz (esker) û polîsek girtine.
*(avestakurd.net, netkurd.com, 14.05.2012)*

***10 gundî tên revandin û piştre azad kirin***
***Di 22 Gulan 2012 de***, PKKê 10 gundiyên, ku ji wan jinek, li gundê Qarincaqa, li qezayê Licê, parêzgeha (wilayet) Diyarbekirê, revandin. Ew di 27 Gulan de li heman ciyî hatin berdan. Ew hatin birin bal jandarman ji bo jêpirsînê.
*(netkurd.com, 27.05.2012)*

***10 endamên karbidestên bajarê Idirê tên dîl kirin***
Çekdarên PKKê « HPG » (Hêzên Parastina Gel) 10 endamên karbidestên (me'mûr) birêvebiriya taybetî ya bajarê Idirê, ku ji wan endazek (muhendis) û parêzerek (avukat), dîl (esîr) kirin. Ev dîlkirin di katjmêr (saet) 19 de, piştî şewitandina sê makîneyan li çêrgehên Qorhanê, li nêzîkî Agirî, bû. Dudu ji wan, piştî ku pasaportên wan ji wan hatin stendin, hatin azad kirin

Piştî vê bûyerê, tevgereke leşkerî li navçeyê dest pê kir.
*(rudaw.net, 29.05.2012)*

**NAVÊ « KURDISTANA IRAQÊ » BI FERMÎ HAT GOTIN**
***Di 19 Gulan 2012 de***, di daxuyaniyeke fermî (îlaneke resmî) ya parêzgeha (wilayet) Şirnexê de, birêvebiriya deriyê gumrukî yê tirkî-iraqî Xabûr cara pêşîn navê "Kurdistana Iraqê" got ! Heta nuha, ji vê herêmê re bi awakî fermî "Bakurê Iraqê" dihat gotin.
*(netkurd.com, avestakurd.net, rizgari.org, 20.05.2012)*

**"MÎRZA ÖCALAN" NEMA TAWAN E**
Birêvebiriya 9mîn a Dadgeha Bilind du endamên partiya kurdî BDPê, Hatip Dicle û Selim Sadak, azad kirin. Wan cezayê 6 meh zîndan ji aliyê Dadgeha 11mîn a Cezayên Giran stendi bû, ji bo ku wan goti bû "Mîrza Öcalan" (bi tirkî Sayın Öcalan) ! Bi ser de jî, 29 parêzerên (avukat) Abdullah Öcalan, serokê PKKê ku li zîndanê ye, ji 300 bêtir dozên (da'wa) wan hebûn, bitenê ji bo ku wan gotinên "Mîrza Öcalan" bi lêv kirin (talaffuz kirin).
*(avestakurd.net, 21.05.2012)*

**LEYLA ZANA BI DEH SAL ZÎNDAN TÊ TAWANBAR KIRIN**
Parlementera navdar Leyla Zana, bi deh sal zîndan ji aliyê 5mîn Dadgeha Cezayên Giran a Diyarbekirê hat tawanbar (mahkûm) kirin, ji bo ku wê 9 caran *"propaganda rêxistinekê, bê ku endama wê be, kir"* (ango PKK). Zana beşdar ne bû dozê. Parêzerê wê Fethi Gümüş beşdarî wê bû.
*(Çapemeniya kurdî, 24.05.2012)*

**BAJARÊN KURDÎ HEJARTIRÎNÊN TIRKIYÊ NE**
Wezareta pêşdebirinê lêgerîneke (recherche, araştırma) ku di 2003 de, bi navê "Lêgerîn li ser rêza pêşdebirina civakî-aborî ya navçe û bajaran" (SEGE), hati bû kirin weşand.

Li gora vê lêgerînê, bajarên kurdî hejartirînên (feqîrtirîn) Tirikiyê ne. Mûş di rêza 81mîn de ye. Diyarbekir ê 67mîn e.
*(netkurd.com, 27.05.2012)*

**DAXUYANIYÊN SEROKÊ PARLEMENTA EWROPÎ**
***Di 29 Gulan 2012 de,*** li merasîmekê li zanîngeha Bilgi, li Istanbulê, bi hinceta (munasebet) nîşankirina wî weka « doktorê rûmetê » (fexrî), serokê Parlementa Ewropî,

Martin Schulz, di axaftina xwe de got ku eger Tirkiye bi rastî dixwaze ku bibe endama Yekîtiya Ewropî, divê ku ew pirsa kurdî çare bike. Û ew li ser Kurdistana Iraqê jî peyivî û got ku hebûna hukûmeteke kurdî ya serbixwe ne ji bo Yekîtiya Ewropî, ne ji bo Tirkiyê û ne ji bo Iraqê pirsek (problêm) e.

Piştre, Mîrza Schulz rastî berpirsiyarên partiya ku bi awakî ne fermî (resmî) kurdî ye, BDPê, hat. Li gora rojanameya tirkî Zaman, wî konfêranseke çapemeniyê pêk anî û tê de got : « *Mixabin, Tirkiye tu gaveke ciddî ji bo çarekirina pirsa kurdî navêje* ». Û ew li ser qirkirina Roboskî, ku tê de 34 sîvîl, ku ji wan zarok, hatin kuştin peyivî û ji hukûmeta tirkî xwest ku helwesta xwe di vê babetê de (sujet, konu) nîşan bide. Û wî tawanbarkirina parlementera kurd Leyla Zana bi deh sal zîndan jî anî bîran û got ku Tirkiye divê ku baş zanibe ku Parlementa Ewropî ewê vê dozê bi ciddî û hûrî bişopîne (taqîb bike).
*(peyamner.com, 30.05.2012)*

# KURDISTANA IRAQÊ

## SEREDANA SEROKÊ KURDISTANÊ MÎRIYÊN EREBÎ

***Di 01 Gulan 2012 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, hat vexwendin (dawet kirin) konfêranseke aborî li Mîriyên Erebî yên Yekbûyî û ji aliyê cîgirê serokê mîrê Abû Dabî û serleşkerê Mîriyan, Şêx Muhammed Bin Zayid, hat pêşwazî kirin. Her du alî li ser pêwendiyên Mîriyan û Iraqê û Mîriyan û Kurdistanê, di warên aborî (iqtisadî), bazarganiyî û çandî de, peyivîn. Serok Berzanî ji Şêx re rewşa ramyariyî (siyasî), aborî û civakî li Iraqê û tecrubeyên çarekirina pirsên (problêm) ku hene ravekirin.
*(avestakurd.net, aknews.com, 01.05.2012 ; peyamner.com, 02.05.2012)*

## KONGREYA CIVANDINA EREBÎ JI BO BISERKETINA DOZA KURDÎ

***Di 04 Gulan 2012 de***, li Hewlêrê kongreya 1mîn a Civandina Erebî ji bo Biserketina Doza Kurdî bû. Serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, tê de peyivî û got ku rewşa nuha ya Iraqê xerab e û ku ew ber bi diktaroriyê diçe. Û wî got jî ku Kurd napejirînin (qebûl nakin) ku li bin hukûmeteke diktatorî bijîn, ku firokeyên Mig, Mirage û F16 wan natirsînin, ku mafê gelê kurd ê çarenûsiyê heye, lê ku ew bi dyalogê bawer dike.

Sekreterê vê Civandinê, Kazim Hebîb, got ku 120 kesahî (şexsiyyet), ji hundir û derveyî Iraqê, Amerîka, Ostralya, Lubanan, Kanada û Misrê beşdarî vê kongrê bûn.
*(peyamner.com, 04.05.2012 ; aknews.com, netkurd.com, 05.05.2012)*

## ŞANDEKE AMERÎKÎ LI KURDISTANÊ

***Di 05 Gulan 2012 de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya şandeke (dêlêgasyon) amerîkî, ku ji balyozê (sefîr) amerîkî li Iraqê James Jeffery, berpirsiyarê Buroya Hevkariya Ewlehiyî (emniyyet), gênêral Robert Calsin, û konsulê giştî yê vî welatî li Iraqê Alex Leskaris, kir. Wan li ser boran (krîz) û pêvajoya (processus) ramyariyî (siyasî) li Iraqê û awayê çarekirina wan giftûbêj (munaqeşe) kir. Û wan li ser civîna dawîn li Hewlêrê, di navbera aliyên cihê yên iraqî de, jî giftûbêj kir. Balyozê amerîkî piştgiriya xwe ji Kurdistana Iraqê re ravekir û li ser girîngiya (ehemmiyyet) pêwendiyên welatê xwe bi vê herêmê re peyivî.
*(peyamner.com, 05.05.2012 ; avestakurd.net, nefel.com, 06.05.2012)*

## SEREDANA CÎGIRÊ SEROKWEZÎRÊ BULGARISTANÊ

***Di 08 Gulan 2012 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya cîgirê serokwezîrê Bulgaristanê, Simon Jankov, û şanda ku pê re bû kir. Amanca vê seredanê xurtkirina pêwendiyên aborî û bazarganiyî di navbera her du aliyan de bû.
*(rudaw.net, 08.05.2012)*

## HUKÛMETA IRAQÎ LI KERKÛKÊ DICIVE

***Di 08 Gulan 2012 de***, serokwezîrê iraqî, Nûrî El-Malikî, û wezîrên wî li Kerkûkê, li bin parastineke polîsî ya mezzin, civiyan. Hemî wezîrên kurd ên vê hukûmetê ev civîna ku bijartina ciyê wê gelek sembolîk (remzî) bû boykot kir.

El-Malikî di vê civînê de got ku « *Kerkûk Iraqeke piçûk e. Kurd, Ereb, Tirkmen û Fille tê de weka bira dijîn û ewê ev yek weha bimîne. Pirsên (problêm) Kerkûkê nikarin bi zorê, lê bi irada gel, çare kirin. Em tu cihêtî (ferq) di navbera gelên Kerkûkê de nakin* ».

Serok Berzanî Malikî bi diktatorbûnê tawanbar kiri bû û daxuyandi bû ku eger pirs (problêm) heta Îlonê (dema hilbijartinên parêzgehan) çare nebin, rêfêrandumek li ser serxwebûna Kurdistanê ewê bê pêk anîn (li bultena me ya buhurî, N° 85, binêre).
(peyamner.com, rudaw.net, nefel.com, 08.05.2012 ; netkurd.com, 09.05.2012)

**Roja din**, cîgirê serokwezîrê Kurdistanê, Imad Ahmed, tevî 9 wezîrên xwe, çû Kerkûkê û tê de rastî parêzgarê (walî) Kerûkê yê kurd û encumena parêzgehî hat. Piştre, wî di konfêranseke çapemeniyê de got ku Kerkûk beşeke ku nayê veqetandin ji Kurdistanê ye. Wî li ser zanava (nasname, identité) kurdistanî ya Kerkûkê israr kir û gotinên serokwezîrê iraqî El-Malikî li ser vê parêzgehê red kirin. Û wî got jî ku divê ku pirsa Kerkûkê di çarçeva bend 140 ya destûra iraqî de bê çare kirin.
(peyamner.com, 09.05.2012)

***Di 09 Gulan de jî***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, bersîva El-Malikî da û got ku ew qet li ser bend 140 a destûra iraqî (ya li ser navçeyên erebkirî yên Kurdistanê, ku Kerkûk jî dikeve nav wê) ne peyivî û ku wî bi şandina serbaz û firokeyan xwest ku xelk bitirsîne.
(peyamner.com, rudaw.net, netkurd.com, nefel.com, rizgari.org, 10.05.2012)

### XWEPÊŞANDANEKE TUND LI HEWLÊRÊ

***Di 08 Gulan 2012 de***, piştî derketina gotarekê di kovara mehane « Çirpe » de, ku li Hewlêrê tê weşandin û ji aliyê Kurdekî ku li Norvêjê dijî, Helmet Goran, hatiye nivîsîn, hin cuhan xwepêşandaneke (meşîn) bê destûr (bê izn) li ber parlementa Kurdistanê li Hewlêrê kir. Wan kevvir avêtin û duruşm (slogan) li ser dîwaran nivîsîn. Ew ketin nav hewşê û bi kevviran êrîşî polîs û karbidestan (me'mûr, muwazzaf) kir. Li derve, wan êrîşî erebeyên polîsan, buroyên wezaretên malî û perwerdê kir. 15 polîs hatin birîndar kirin û 10 ji wan hatin birin nexweşxanê. Ji xwepêşandiyan hema tukes birîndar ne bû, ji bo ku polîs ne xwest ku li wan bixe û xwîn birije. Di vajayê (eks) vê de, polîs li ser çongan rûniştin û xwe li bin mertalên xwe veşart.

Cuhanan bi tundî (şiddet) êrîşî firoşgehên (dikkan) alkolê yên li riya sereke ya Hewlêrê kir û ew şewitandin. Û wan êrîşî kanala têlêvîzyonê « Zagros TV » jî kir û rudurşmên olî (dînî) li ser dîwaran nivîsîn, alên olî hilgirtin û duruşmên « Allahuekber », « Na ji sêkularîsmê re » (cihêkirina dîn û dewlet) … avêtin.

***Di heman rojê de***, parêzgarê Hewlêrê, Newzad Hadî, konfêranseke çapemeniyê pêk anî û got ku ev xwepêşandan di dema civîna hukûmeta iraqî de, bi serokatiya serokwezîr Nûrî El-Malikî, li Kerkûkê û boykotkirina wê ji aliyê hemî wezîrên kurd ên fêdêral bû. Û wî got jî ku ewê tawanbar (kesên bi sûc) bên birin dadgehê (mehkemê).

Serokê encumena Weqfên Olî, Beşîr Xelîl, li Parlementa Kurdistanê got ku heta nuha nayê zanînin ev xwepêşandî kî ne û amanca wan çi ye. Û wî got jî ku encumena wî rastî wan li ber parlementê hat û ji wan re daxuyand ku kovara « Çirpe » bi awakî katî (muweqqet) hatiye girtin û sernivîskarê wê hatiye ragirtin.

***Roja din***, hemî komên parlementa Kurdistanê daxuyaniyeke hevrayî ya 4 xalî weşand : 1- Azadiya çapemeniyê û mafê xwepêşandanê beşek ji mafên destûrî yên Kurdistanê ne. Lê, di heman demê de, em her heneka bi olan tawanbar dikir. 2- Em xwepêşandanên tund tawanbar dikin. 3- Divê ku vekolînek (ankêt) li ser vê babetê bê kirin. 4- Berê kutahbûna (xelasbûn) vê vekolînê, em tawanbarkirina tukesî napejirînin (qebûl nakin). Ji aliyekî din jî, em her tevgereke illêgal li dijî rojnamevan û mêdyayan tawanbar dikin.

Encumena wezîran jî, bi serokatiya serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, civiya. Berzanî got ku hukûmeta Kurdistanê bi awakî lêgal li dijî van kesên ku ewqas zarar anîn tevdigere û ku pêwîst e ku ew li gora zagonê (qanûn) bên ceza kirin.
(Kurdistan TV, peyamner.com, 08.05.2012; rizgari.org, 09.05, netkurd.com, 09 û 10.05, avestakurd.net, nefel.com, rudaw.net, 10.05.2012)

Kurdistan ji hemî aliyan bi dewletên ku rejîmên wan islamî yan nîv-islamî ne hatiye dorpêç kirin. Loma, mixabin (maalesef), ew nikare ji kartêkirina (te'sîr) hin komên tund (êkstrêmîst) kutah bibe (xelas bibe). Bi ser de jî, Îran û Erebistana Suûdî bi hemî awayan tecrube dikin ku xwe bixin nav karê Iraq û Kurdistanê (Buroya Kurdî).

### ÊRÎŞÊN TÊRRORÎST LI NAVÇEYÊN EREBKIRÎ YÊN KURDISTANÊ

***Di 09, 14, 16 û 24 Gulan 2012***, êrîşên têrrorîst li Şêxan, Kerkûk, Celewla û Baqûba hatin kirin. Bi giştî, 2 kes mirin û 8 birîndar bûn. 8 firoşgeh (dikkan) li Şêxan hatin şewitandin.
(Çapemeniya kurdî)

### LIHEVKIRIN DI NAVBERA IRAQ Û YEKÎTIYA EWROPÎ DE

***Di 11 Gulan 2012 de***, wezîrê Iraqê yê karên derve, Hoşyar Zîbarî (kurd), li Bruksêlê lihevkirinek bi Kommîsêra Bilind a Karên Derve ya Yekîtiya Ewropî, Catherine Ashton, re li ser van xalan wajo (imza) kir : 1- Têkoşîna li dijî têrrorîsmê. 2- Parastina mafên mirvo. 3- Pêşdebirina aborî (iqtisadî, êkonomîk). 4- Handana

(teşwîq kirin) berhemanînê (investment). 5- Hevkarî di warê ênêrjiyê de.
(avestakurd.net, 12.05.2012)

**KURD KURDEKÎ SÛRIYÊ KUTAH DIKIN**
Pêşmergeyên ku li Mûsilê ne Kurdek ji destên serbazên (esker) iraqî kutah (xelas) kir. Evên dawîn dixwest ku Kurdekî Sûriyê, ku reviya bû û dixwest ku derbas bibe Kurdistana Iraqê, vegerînin Sûriyê. Pêşmergeyan êrîşî vê bingeha jandarma leşkerê iraqî kir û ew Kurd kutah kir.
(avestakurd.net, 13.05.2012)

**BUCEYA SERBAZÊN KURD NÎN E**
Berdevkê wezareta Pêşmerge ya Kurdistana Iraqê, Cebbar Yawer, li civîneke çapemeniyê li Hewlêrê got ku serokwezîrê iraqî Nûrî El-Malikî lihevkirina li ser pêşmergan, ku ji aliyê hukûmeta navendî li Bexadê (ji aliyê El-Malikî bixwe) û hukûmeta Kurdistana Iraqê li Hewlêrê hatiye wajo (imza) kirin, bi cî nayne (tatbîq nake). Li gora vê lihevkirinê, hemî çekkên ku ji leşkerê iraqî re tên dayîn divê ku ji pêşmergeyan re jî bên dayîn. Û wî got jî ku hemî herêmên Iraqê divê ku polîs, servîsên ewlehiyê (emniyyet) û parêzvanên sînorên wan hebin û ku hemî ev hêz beşek ji leşkerê iraqî ne. Loma, buceya van hêzên pêşmergan divê ku beşek ji tevayiya buceya leşkerê iraqî be. Yawer got ku ji deh salan de Wezareta Pêşmerge ya Kurdistanê tutiştî ji buceya vî leşkerê iraqî nastîne.
(avestakurd.net, nefel.com, 15.05.2012)

**SEROKWEZÎRÊ KURD LI TIRKIYÊ**
***Di 16 Gulan 2012 de***, serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, çû Tirkiyê û bi rêz (bi dor) rastî serokê tirk Abdullah Gül, wezîrê karên derve Ahmet Davutoğlu, serokwezîr Recep Tayyıp Erdoğan û rawêjkarê (muşawir) wezîrê karên derve, Feridun Sinirlioğlu, hat. Şanda Berzanî ji wezîrê kaniyên sirûştî (tabîî) yê Kurdistana Iraqê, Aştî Hewramî, û serokê kabîneya serokê Kurdistanê, Fuad Huseyn, pêk hati bû.
(Çapemeniya kurdî, 17.05.2012)

**PARLEMENTERÊN BRÎTANÎ Û SKOTLANDÎ NASKIRINA NIJADKUJIYA KURDÎ DIXWAZIN**
Koma bi navê "All-Party Parliamentary Group", ku ji parlementerên brîtanî û skotlanî yên hemî partiyên ramyariyî, ji bo piştgiriya Kurdistana Iraqê, pêk hatiye û Henry Jackson Society, rêxistineke bîr "think tank", ku li Londonê ye, li House of Commons civînek ji bo pêşkêşkirina rappora koma parlementeran, piştî seredana wê ya 6mîn Kurdistana Iraqê ji 2008 de, pêk anî. Rappor pêşveçûna Kurdistanê di warên aborî, pêwendiyên derve û sazendeyên (muessese) dêmokratîk de dest nîşan dide. Ew balan jî dikişîne zoriyên ku li hemberî gelê kurd, partiyên ramiyariyî û hukûmeta Kurdistanê hene, û bangî hukûmeta brîtanî dike ku nijadkujiya (qetliam) kurdî nas bike û welatên din han bide (teşwîq bike) ku heman (eynî) tiştî bikin.

Parlementer Robert Halfon got ku *"Kurd zemanekî zêde dirêj li benda dadiyê (edalet) man. Iraq bi awakî fermî (resmî) nijadkujiyê pejirand (qebûl kir)* û ev erkê (wacib) tevayiya cihanê ye ku heman (eynî) tiştî bike û kar bike ku kesên ku vê nijadkujiyê kiriye bên birin ber dadmendiya navneteweyî. *"Ez we hemiyan had didim (teşwîq dikim) ku hûn hemî parlementerên xwe, ev kesên ku desthilata wan heye, lobî bikin ji bo ku Kurd naskirineke fermî (resmî) ji bo êşa xwe bistînin ..."*

Rappor û axaftinên parlementeran Kurdistan weka nimûneyekê (modêl) ji bo Rojhilata Navîn dest nîşan da. Nimîndendeya hukûmeta Kurdistana Iraqê li Britanya Mezzin, Beyan Samî Abdulrahman, bangî parlementeran û xelk kir ku belavokeke bi "online" (internet), ku bangî hukûmeta brîtanî dike ku nijadkujiyê bi awakî fermî nas bike, wajo (imza) bikin.
(peyamner.com, 12.05.2012)

Gary Kent, birêvebirê APPGê (All Party Parliamentary Group), di 21.05.2012 de gotarek di heftenama kurdî "Rûdaw" de nivîsî û tê de malpera vê komê dest nîşan da : www.appgkurdistan.org.uk

**KONFÊRANSEKE NAVNETEWEYÎ LI SER ÊNÊRJIYÊ LI HEWLÊRÊ**
***Di 20 Gulan 2012 de***, li Hewlêrê konfêranseke navneteweyî li ser ênêrjiyê, ku wezîrê tirk ê ênêrjiyê Taner Yıldız beşdarî wê bû, hat pêk anîn. Wezîrê kaniyên sirûştî (tabîî) yê Kurdistanê, Aştî Hewramî, tê de got ku di sala wêbê (ya li pêş me) de ewê Kurdistan pêtrolê bi riya Tirkiyê, bi boriyeke taybetî, derxîne Ewropa. Serokwezîrê kurd, Nêçîrvan Berzanî, got ku Kurd napejirînin (qebûl nakin) ku hin kes (serokwezîrê iraqî, Nûrî El-Malikî) wan li hemberî hinek gaz û pêtrol bi kar bîne. Wî bi ser de got ku *"Em azadiya siyasî û aborî dixwazin"*. Serokwezîrê tirk got ku di destpêkê de ewê bi riya tankeran û piştre bi boriyeke taybetî guherandin bibe : pêtrola xam ewê ji Kurdistanê biçe Tirkiyê, û pêtrola parzûnkirî (paqij) ewê ji Tirkiyê bê şandin Kurdistanê.

Di dema seredanên serokê Kurdistanê Mesûd Berzanî Tirkiyê de (li bultena me ya buhurî, N° 85, binêre), û piştre yên serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, ev babet bi berpirsiyarên ramyariyî yên tirk re hat giftûgo kirin. Hukûmeta navendî li Bexdadê ji vê lihevkirinê ne dilxweş e û dixwaze ku hemî kontratên Kurdistanê ji aliyê wê bên wajo kirin. Lê rewş li Iraqê ewqas têk çûye (xerab bûye) ku herkes destûrê bi awayê xwe şirove dike (tefsîr dike).
(nefel.com, netkurd.com, 21.05.2012)

**BÛRSÊN XWENDINÊ LI ÎTALYA**
***Di 22 Gulan 2012 de***, protokolek li ser dayîna bûrsan ji nêzîkî 100 xwendekarên kurd re, li zanîngehên îtalî, di navbera wezareta perwerdeya bilind û lêgerînên zanyariyî ya Kurdistanê û balyozê (sefîr) Îtalya li Iraqê hat wajo kirin. Balyozê îtalî got ku bi dehan şirket li Kurdistanê kar dikin, lê ku tukes tê de îtalî napeyive. Loma, girîng (muhim) e ku Kurd li Îtalya bixwînin, ji bo ku karibin li van şirketan kar bikin.
*(peyamner.com, 22.05.2012)*

**SEREDANA RAMYARÊN KURD ŞENGALÊ**
***Di 22 Gulan 2012 de***, cîgirê serokwezîrê kurd, Imad Ehmed, tevî şandekê çû Şengalê (Sincar), navçeyeke erebkirî ya Kurdistanê, ku tê de nemaze Kurdên yezîdî dijîn û ku ji aliyê hukûmeta navendî ya Bexdadê hatiye ihmal kirin. Şande ji wezîrê hundir Kerîm Sincarî, wezîrê pêşdebirinê Kamuran Ehmed, wezîrê şaredariyan û geştê (tûrîsm) Dilşad Şehab, wezîrê tendurustiyê (saxî) Heme Reşîd, parêzgarê (walî) Duhokê Temer Remezan û sekreterê encumena wezîran pêk hati bû.

Ew ji aliyê berpirsiyarên ramyariyî û idarî yên navçeyê hatin pêşwazî kirin. Imad Ehmed ji gelheyê (xelk) re got ku ew vê navçeyê weka beşek ji Kurdistanê dibîne û ku divê ku ew li gora bend 140 a destûrê pê bê girêdan. Û wî got jî ku hukûmeta Kurdistanê buceyeke taybetî ya 30 milyon dolar ji bo pêşdebirina Şengalê veqetandiye û ku ewê ewlehiya (emniyyet) rûniştevanên wê bê parastin.
*(Krg., rizgari.org, 24.05.2012)*

**FORUMEKE SWÊDÎ LI HEWLÊRÊ LI SER BELAVBÛNA ÇEKÊN PIÇÛK**
***Di 27 û 28 Gulan 2012 de***, tora (şebeke) giştî ya swêdî ya Foruma Parlementerî konfêransek bi navê “Semînera Parlementerî li ser Çavdêrîkirina (kontrol) Belavbûna Çekên Piçûk û Çekên Sivik” (Parliamentary Seminar on Controlling Proliferation of Small Arms and Light Weapens) pêk anî. Ew li navenda ETTC (European Technology and Training Center) li Hewlêrê bû û ji aliyê Parlementa Kurdistanê û Encumena Iraqî ya Parlementeran hat “sponsor” kirin.

Li gora Peter Weiderud, sekreterê giştî yê Foruma Parlementerî, amanca konfêransê civandina parlementeran ji Rojhilata Navîn û Afrîka Bakur, ji bo ku ew tecrubeyên hevdu nas bikin û di rola xwe ya girîng a parlementeran de piştgiriya hevdu bikin, bû. Wî got ku di navbera 500.000 û 600.000 kes ji sedema belavbûna çekkên piçûk her roj li cihanê dimirin. Ji 20 parlementerên Afrîka Bakur, Rojhilata Navîn û Ewropa Rojhilatê beşdar bûn.
*(rudaw.net, 30.05.2012)*

**SEREDANA NIMÎNENDEYÊ SEROKÊ RÛSYA**
***Di 29 Gulan 2012 de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya Mikhail Bogdanov, nimînendeyê (temsîlcî) seroka Rûsya ji bo karên Rojhilata Navîn û cîgirê wezîrê rûs ê karên derve, û şanda (dêlêgasyon) ku pê re bû, kir. Şande ji Youri Champrani, serokê Yekîtiya Berhemaniyên Pêtrola Rûsya; alîkarê wî û konsulê Rûsya li Kurdistanê pêk hati bû.

Her du alî pêwîstiya pêşdebirina pêwendiyên xwe giftûgo kir. Youri Champrani got ku ewê gelek şirketên rûsî yên pêtrol û gazê werin li Kurdistanê kar bikin, ji bo ku îro Kurdistan li navçeyê bûye ciyekî gelek girîng.
*(peyamner.com, aknews.com, 29.05.2012)*

**CELAL TALABANÎ DIBE PROFÊSSORÊ RÛMETÊ**
***Di 30 Gulan 2012 de***, Mikhail Bogdanov çû seredana serokê Iraqê, Celal Talabanî (kurd), li Suleymaniyê û navê profêssorê rûmetê (fexrî), ku Enstituya Lêgerînên Stratêjîk ya Wezareta Karên Derve ya Rûsya daye wî, lê kir.

**28 JIN XELATAN DISTÎNIN**
Yekîtiya Jinên Kurdistanê li Suleymaniyê xelat dan 28 jinên xebatkar, ku piştî ku salên dirêj di warê perwerde û gihandihê de kar kir, temenê (umr) wan mezzin bûye. Banû Hêro Ibrahîm Ehmed, xanima serokê Iraqê Celal Talabanî (kurd), xelat dan wan. Gelek ji wan dê û xuşkên pêşmergeyên ku ji bo Kurditanê mirine ne.
*(rudaw.net, 31.05.2012)*

# NIJADKUJIYA KURDÎ : VEGERA 730 LAŞAN KURDISTANÊ

***Di 28 Gulan 2012 de***, di merasîmeke mezzin li Germiyanê, li nêzîkî Suleymaniyê, de 730 tabûtên bi ala kurdî pêçayî hatin anîn Kurdistanê. Tê de laşên qurbanên nijadkujiya kurdî ku di salên 1980 de ji aliyê Saddam Huseyn hati bû kirin hebûn. Saddam navê vê nijadkujiyê kiri bû "Enfal" (ayeteke qur'anî ku ferman dide şerkerên misilman ku kafiran bikujin û hebûn û jinên wan bistînin !). Ev qurban di gorên hevrayî de li Başûrê Iraqê hati bûn gor kirin. Wezîrê Şehîdan û Enfalê, Aram Ehmed, got ku beşek ji wan hati bû gulle kirin û beşeke din sax gor kirin.

Di axaftina xwe de, serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî got ku ev qurban bitenê ji bo ku Kurd bûn hatin kuştin. Û wî got jî ku di 8 pêlên Enfal de, li 6 navçeyên Kurdistanê, 182.000 kes hunda bûn û ku ew hêdî hêdî li çolan tên dîtin.

Gelek berpirsiyarên ramyariyî (siyasî) yên Kurdistan, Iraq û welatên derve beşdarî merasîmê bûn.

***Roja din***, di 29 Gulan de, bi amadebûna serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, tabût li Çemçemalê hatin veşartin. Berzanî tabûta pêşîn hilgirt ser millên xwe.

*(Çapemeniya kurdî, 28 û 29.05.2012)*





## AMERÎKA AZADKIRINA GIRTIYEKÎ KURD Ê NAVDAR DIXWAZE

Di konfêranseke çapemeniyê de, berdevka "State Department"a amerîkî, Victoria Nuland, bangî hukûmeta îranî kir ku Muhammed Kabûdvend, serokê Rêxistina Mafên Mirov li Kurdistanê, azad bike. Kabûdvend di 2007 de bi 11 sal zîndan hati bû tawanbar kirin, ji bo ku wî mercên (şert) jiyana girtiyan li Îranê, êşkence jî tê de, aşkere dikirin. Ew bi xebata li dijî ewlehiya dewletê hati bû tawanbar kirin.

Ev konfêransa çapemeniyê beşek ji kampanya "State Department"ê, li bin duruşma (slogan) "Free the Presse" (Çapemeniyê azad bikin), bû. Ewê heta 03 Gulan, Roja Cihanî ya Azadiya Çapemeniyê, bajo (dewam bike).

Di 1997 de, Kabûdvend, tevî hevalên çalak (aktîf), rêxistina "Yekîtî ji bo Dêmokrasiyê li Îranê" ava kiri bû. Di 2003 de, ew bû sernivîskarê rojnama duzimanî kurdî-farisî "Peyama Gel". Di 1998 de, ji aliyê merivên hukûmeta îranî hat ragirtin û rojname hat rawestandin. Piştî azadkirina wî di 2005 de, wî Rêxistina Mafên Mirov li Kurdistanê ava kir. Di 2007 de, ew bi xebata li dijî ewlehiya neteweyî, ji sedema avakirina rêxistinekê û kirina propaganda di nivîsên xwe de, hat tawanbar kirin. Ew bi 11 sal zîndan hat tawanbar kirin. Di 2009 de, British Press Awards ew weka Rojnamevanê Navneteweyî yê Salê dest nîşan kir. Û wî Xelata Hellman/Hammett ya rêxistina Human Rights Watch jî stend. Rêxistinên navneteweyî, ku ji wan Amnesty International û Reporterên Bê Sînor, bangî hukûmeta îranî kiri bû ku Kabûdvend bê merc azad bike. Ew nuha li zîndanekê li Tehranê ye. Jina wî, Perînaz Huseynî, got ku ew xebatên "State Department" û civata navneteweyî teqdîr dike, lê ku hêviya wê nîn e ku desthilatên îranî zilamê wê ku ji pirsên tendurustiyê (saxî) yên cihê dêşe azad bikin.

Rêxistinên mafên mirov li Îranê daxuyand ku Kabûdvend dest bi mangirtineke (grêv) birçîbûnê kiriye. Wî nameyek ji desthilatên îranî re nivîsî û tê de got ku ewê vê mangirtinê heta ku ew xwestina wî ku bi awakî katî (muweqqet) vegere mala xwe, ji bo seredana kurrê xwe yê nexweş, bipejirînin (qebûl bikin) dewam bike.

*(rudaw.net, 01 û 16.05.2012)*

## 1ê GULANÊ LI KURDISTANÊ QEDEXE YE

***Di 01 Gulan 2012 de***, bi dehan karker û çalakvanên sîvîl li Sinê, li Kurdistana Îranê, xwepêşandanek ji bo pîrozkirina 1ê Gulanê kir. Lê ji destpêkê de, polis û hêzên ewlehiyê yên îranî tecrube kir ku wan bi gazên hêstirrêj belav bike. Gelek kes hatin ragirtin û birin ciyekê nenas. Karker û çalakvanên Sinê û bajarên din ên Kurdistanê lêgalkirina pîrozkirinên 1ê Gulan xwestibû, les desthilatên îranî ev yek ne pejirandi bû.

*(rudaw.net, 02.05.2012)*

## SÊ KURD HUKMÊ ÎDAMÊ DISTÎNIN

Ajansa Çalakvanên Mafên Mirov li Îranê daxuyand ku 3 girtiyên kurd, ku bi endambûna partiyên ramyariyî yên kurdî û bi şerrê li dijî Xwedê hati bûn tawanbar kirin, hukmê îdamê stend. Ev kes ev in : Hoşeng Rezayî, Ibrahîm Îsapûr û Sîrwan Nijawî.

*(rudaw.net, 05.05.2012; avestakurd.net, 10.05.2012)*

Rêxistina Mafên Mirov li Kurdistanê daxuyaniyek weşand û tê de azadkirina 23 girtiyên ramyariyî yên kurd ên din, ku wan jî hukmê îdamê stendiye, xwest.

*(netkurd.com, 06.05.2012)*

## KONGREYA GELÊN ÎRANA FÊDÊRAL LI NORVÊJÊ

***Di 07 Gulan 2012 de***, Kongreya salane ya Gelên Îrana Fêdêral li Norvêjê bû. Partiyên kurdî jî tê de amade bûn û wan li ser fêdêralîsma neteweyî-coxrafî israr kir. Ev Kongre li Ewropa Rojava di 2005 de, bi saya xebata partiyên ramyariyî yên Kurdên Îranê, ava bû bû. Lê heta nuha tu partiyeke farisî beşdarî wê ne bûye. Li gora Farisan, Îran dewleteke yekneteweyî (Faris), ku tê de ziman û zaravên cihê tên bi kar anîn, e. Ji derveyî Kurdan, partiyên ramyariyî yên Belûç, Ereb, Tirkmen û Azeriyan beşdarî vê Kongrê dibin.

*(rudaw.net, 10.05.2012)*

## LI ÎRANÊ DI 2011 DE 600 KES HATIN ÎDAM KIRIN

Rêxistina Parastina Girtiyên Siyasî û Civakî li Îran û Kurdistanê rapporek li ser îdaman li Îranê weşand. Rappor dibêje ku bitenê di 2011 de rejîma îranî 600 kes îdam kirin û ku gelek girtî hergav li benda îdambûnê ne.

*(avestakurd.net, 13.05.2012)*

## LAŞÊN 18 KESAN LI SER SÎNOR

Par, laşên 18 kesan li bin berfê, li nêzîkî Salmasê (parêzgeha Urmiyê), li Kurdistana Îranê, û li sînorê Kurdistana Tirkiyê hatin dîtin. Gelek kes ji vî sînorî ji Îranê direvin, ji bo ku bigihêjin Tirkiyê û piştre Ewropa. Bi ser de jî, çekdarên PJAKê (baskê îranî yê PKKê) tê de çalak (aktîf) in. Tukes sedema mirina van 18 kesan nizane.

## 8 GIRTIYÊN KURD TÊN ÎDAM KIRIN

***Di 31 Gulan 2012 de***, 8 girtiyên kurd li zîndana navendî ya Urmiyê hatin bi dar ve kirin (daleqandin). Ew bi qaçaxçîtiya heşîşê hati bûn tawanbar kirin (piraniya girtiyan bi vê qaçaxçîtiyê tên tawanbar kirin). Navên van îdamkiriyan ev in : Alahwêrdî Ahmedpûr, Seyad Ahmedûr, Sefe Pakîzerû, Hacî Pejohêş, Xosro Derwîş, Seyid Adnan Geylanî, Nihad Nûreldînî û Abdulmecîd Muradpûr.
*(avestakurd.net, 31.05.2012)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## XWEPÊŞANDAN LI KURDISTANÊ

***Di 27 Nîsan, 04 û 11 Gulan 2012 de***, weka li herderê Sûriyê, xwepêşandan (meşîn) li bajarên cihê yên Kurdistanê bûn.

Di xwepêşandana 04 Gulan li Hilaliyyah de, partiya PYD (PKK'ya Sûriyê) êrîşî endamên Yekîtiya Hêzên Dêmokratîk ên Kurdî li Sûriyê kir. Çend kes, ku ji wan Abdulsamad Umar, yek ji birêvebirên vê Yekîtiyê, birîndar bûn.

***Di 05 Gulan de***, partiyên ramyariyî yên kurdî, çalakvan û komên cuhanan bangî boykotkirina hilbijartinên parlementerî yên 07 Gulan li Sûriyê kir.
*(kurdwatch.org, 03.05.2012)*

## RAGIRTIN Û KUŞTINA KURDAN

***Di 19 Nîsan 2012 de***, Kurdek ji Dêrikê, ku xizmeta leşkerî dikir, Sîpan Muhammed Elî Osê, li Rastanê, li nêzîkî Humsê, hunda bû. Wî dixwest ku otobusê li Humsê bistîne, ji bo ku tatîleke kurt li bal dê û bavê xwe derbas bike.
*(kurdwatch.org, 06.05.2012)*

***Di 25 Nîsan de***, servîsên dizzî çalakvanakê cuhan, Muhammed Can Muhammed, endamê Tevgera Cuhanên Kurd, li nêzîkî rawesta otobusê li Hesiçê ragirt. Wî dixwest ku biçe civîneke amadekirina Roja Rojanmevaniya Kurdî. Ew berê hatin birin buroya servîsên dizzî yên hêzên ezmanî. Li wê derê ew hat tazî kirin, êşkence kirin û du roj bê xwarin hiştin. Piştî xwepêşandanên hevalên wî di 26 Nîsan de, li Amûdê û Dirbêsiyyê, û tehdîdên şandeke bijîjk (doktor) û parêzeran (avukat) ku ewê buroya serokê qezayê Dirbêsiyyê bê şewitandin, Muhammed di 27 Nîsan de li firokexana Qamişlî, bi çavên girtî û piştî ku daxuyaneyek wajo (imza) kir ku ewê nema beşdar bibe xwepêşandanan, hat berdan. Perê wî, 3.500 lîreyên sûrî, hat stendin û têlêfona wî ya dest (GSM, Mobile) hat têk dan (xerab kirin).
*(kurdwatch.org, 10.05.2012)*

***Di 26 Nîsan de***, M'asûm Muhammed Şerîf, xwendekarê zanînên ramyariyî (siyasî), li ber avahiya razana xwendekaran, li Şamê, hat ragirtin. Sedema ragirtina wî nenas e.
*(kurdwatch.org, 01.05.2012)*

***Di 27 Nîsan de***, xwendekarekî endaziyê (hendese) ji aliyê servîsên sûrî li ber mala xwe, li Raqqa, hat ragirtin, bê ku sedema vê yekê bê zanîn. Ew kurrê enzanê navdar Muhammed El-Çol Beg e.
*(avestakurd.net, 03.05.2012)*

***Di 02 Gulan de***, PYD (PKKa Sûriyê) li taxa kurdî ya li nêzkîkî Şamê, Zorava, xwe pêşan da (meşiya). Polîs êrîşî xwepêşandiyan kir û du kes, Usman Hemo û Mehmûd Abdurrahman Hesen, ragirtin.
*(kurdwatch.org, 09.05.2012)*

Serbazê (esker) bi navê Safwan Ehmed bi ber (gulle) li Hama hat kuştin. Dijberî (muxalefet) û çalakvanên kurd dibêjin ku ew ji aliyê merivên leşkerê sûrî hat kuştin, ji bo ku wî ne pejirand (qebûl ne kir) ku agir berde xwepêşandiyan. Di vajayê (eks) vê yekê de, berpirsiyarên rejîmê dibêjin ku ew ji aliyê komeke çekdar hat kuştin.
*(rudaw.net, 23.05.2012)*

***Di 06 Gulan de***, dranker û çalakvan Bilind Muhammed Ma'şûq Hemze ji aliyê hêzên ewlehiyê li Şamê hat ragirtin û piştre, di 12 Gulan de, hat berdan. Ew hati bû xitin hucreyeke tenha û di roja yekemîn de hati bû êşkence kirin. Ji berê jî, ew di 13 Tîrmeh 2011 de, tevî 29 kesên din, 4 roj hati bû girtin.
*(kurdwatch.org, 25.05.2012)*

***Di 07 Gulan de***, di xwepêşandanekê li zanîngeha Helebê de, hêzên ewlehiyê xwendekarê bijîjkiyê (tib), Xelîl Yûsuf Taha, ragirt û lê xist.
*(kurdwatch.org, 25.05.2012)*

***Di 21 Gulan de***, cuhanekî kurd ê 16 salî, Xerîb Usman Mehmûd, bi bombeyekê li Şamê, dema ku wî li xwaringehekê (rêstoran) kar dikir, hat kuştin.
*(kurdwatch.org, 28.05.2012)*

**ENCUMENA NETEWEYÎ YA KURDÎ LI AMERÎKA**

***Di 07 Gulan 2012 de***, bi vexwendina fermî (daweta resmî) ya wezareta amerîkî ya karên derve, şandeke Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) çû Amerîka. Di roja pêşîn de, ew rastî berpirsiyarên wezareta amerîkî ya karên derve, rawêjkarê (muşawir) wezîra karên derve, Freedhof; hin endamên Congres'ê, û nimînendeyê hukûmeta Kurdistana Iraqê li Washingtonê, hatin.

*(avestakurd.net, rizgari.org, 09.05.2012)*

***Di 08 Gulan de***, şande rastî serokê beşa kurdî li Congres'a amerîkî, balyozê (sefîr) amerîkî li Sûriyê, Robert Ford, û revenda (diaspora) Kurdên Sûriyê li Amerîka hat.

*(avestakurd.net, nefel.com, peyamner.com, 10.05.2012)*

***Di 09 Gulan de***, ew rastî Enstituya Washingtonê ji bo siyaseta Rojhilata Navîn, endamê Congrêsa amerîkî, Joseph Bates, û rawêjkara karên ewlehiya (emniyyet) neteweyî ya amerîkî hat.

*(avestakurd.net, 11.05.2012)*

***Di 10 Gulan de***, rasthatin bi Enstituya Navneteweyî ya Lêgerînên Stratêjîk, hin endamên Congresê û buroya pêwendiyên derve û karên Rojhilata Navîn a Congresa amerîkî, re.

*(avestakurd.net, 12.05.2012)*

***Di 11 Gulan de***, rasthatin bi Navenda Pêşverû ya Amerîkî, hin endamên Congresê, rojnama Washington Post û wezareta karên derve re. Piştre, semînerek ji bo rendenda Kurdên Sûriyê hat kirin.

*(avestakurd.net, 15.05.2012)*

**PEVÇÛN DI NAVBERA EREB Û KURDAN DE LI HELEBÊ**

***Di 09 Gulan 2012 de***, komeke çekdar a erebî êrîşî taxa kurdî li Helebê, Şêx Meqsûd, kir. 11 kes, ku ji wan 3 Kurd û 8 Ereb, hatin kuştin û gelek kes birîndar bûn.

***Di 11 Gulan de***, ji 30.000 kes bêtir li Qamişlî, ji bo piştgiriya Kurdên Helebê, xwe pêşan da.

*(avestakurd.net, rizgari.org, 11.05.2012)*

**PYD : FÊDÊRALÎSM NE ÇARE YE**

Yek ji berpirsiyarên partiya kurdî PYDê (baskê sûrî yê PKKê), Huseyn Çawîş, ku ji 10 sal bêtir li zîndanên tirkî ma bû, ji ajansa kurdî ya Sûriyê, Mîdyanews, re daxuyand ku partiya wî "xweseriya dêmokratîk" (otonomiya dêmokratîk, weka PKKê li Tirkiyê), ne fêdêralîsmê, dixwaze (Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê, ku partiyên din ên siyasî yên Kurdên Sûriyê tê de ne, fêdêralîsmê dixwaze).

*(avestakurd.net, 14.05.2012)*

**TECRUBEYÊN REVA KURDISTANA IRAQÊ**

Du ji pênc mamosteyên kurd ku di 13 Adar 2012 de bi zorê ji Hesîçê hati bûn birin ciyekî din, tevî malbatên xwe reviyan Kurdistana Iraqê. Ew Abdurrahman Cewher û Nizar Behrem in. Wan daxuyand ku piştî guherandina ciyê karê wan, xwepêşandan çûbûn û ku piştî çend rojan wan tehdîdên kuştinê stendin. Her 5 mamoste neçar (mecbûr) bû bûn ku daxuyaniyekê wajo (imza) bikin û tê de bêjin ku ewê nema beşdar bibin xwepêşandanan yan çalakiyên din. Nuha, her du mamoste li kampa penaberan, li nêzîkî bajarê Duhokê, ku tê de 250 malbatên kurd ên Sûriyê dijîn, dimînin.

*(kurdwatch.org, 21.05.2012)*

***Di 16 Gulan 2012 de***, dergevanên sînorî Suleyman Muhammed Salih Ibrahîm, dema ku ket nav Kurdistana Iraqê, kuşt. Wî xizmeta leşkerî kutah (xelas) kiri bû, lê hîn ji leşker ne hati bû dûr xistin. Piştî seredaneke malbatî, ew nema vegeriya yekîniya xwe. Wî bi 6 serbazên (esker) kurd ên din re tecrube kir ku bireve Kurdistana Iraqê. Du ji wan hatin birîndar kirin. Ew li nexweşxaneyekê li Zaxo, li Kurdistana Iraqê, tên derman kirin.

*(kurdwatch.org, 27.05.2012)*

***Di 27 Gulan de***, 15 cuhanên kurd ku ji xizmeta leşkerî reviya bûn li sînorê iraqî, dema ku wan tecrube dikir ku birevin Kurdistana Iraqê, hatin kuştin. Laşên hin j iwan hatin avêtin çemê Diclê.

*(netkurd.com, 27.05.2012)*

**UN SÛRIYÊ TAWANBAR DIKE**

***Di 27 Gulan 2012 de***, di civîneke awarte (istisnaî) de, encumena ewlehiyê ya UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) qirkirinên ku ji aliyê rejîma sûrî li Hola, li nêzîkî Şamê, bûn û ku tê de 116 kes, ku ji wan 49 zarok û 7 jin, hatin kuştin, bi xurtî tawanbar kirin. Di 15 mehên serhildanê de, 11.000 kes hatin kuştin. Roja din, Kofi Annan, şandê taybetî (xusûsî) yê UNê çû Şamê.

*(aknews.com, netkurd.com, 28.05.2012 ; avestakurd.net, nefel.com, 29.05.2012)*

**12 WELAT BALYOZÊN SÛRÎ VEDIGERÎNIN**

Heta nuha, 12 welat balyozên (sefîr) sûrî vegerandin : Amerîka, Almanya, Britanya Mezzin, Fransa, Beljîka, Ispanya, Îtalya, Hollanda, New Zellanda, Ostralya, Tirkiye û Japon.

*(rudaw.net, 31.05.2012)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**PÊŞANGEHEKE ŞANO LI KURDISTANA TIRKIYÊ**

Şaredarê Diyarbekirê pêşangeheke (exposition) fotoyên ku hunera şano (théâtre) ya vî bajarî di 20 salên dawîn de nîşan didin pêk anî. Ew li Eywana Şano ya avahiya şaredariyê bû. Di heman (eynî) demê de, semîner û çalakiyên şanoyê bûn.
*(aknews.com, 01.05.2012)*

**FÊSTIVALEKE ÇANDÎ LI KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 01 Gulan 2012 de***, 4mîn Fêstivala Çandî ya Hewramanê, bi navê « Gerrek li nav bedewiyên Hewramanê» bû.
*(rudaw.net, 01.05.2012)*

**XELATÊN NAVNETEWEYÎ JI KURDAN RE**

***Xelata serokê amerîkî Obama ji rojnamevanekî re***

***Di 28 Nîsan 2012 de***, serokê Amerîka, Barak Obama, Xelata salane ya Civaka Rojnamevanên Saraya Sipî da rojnamevanê heftenameya Rûdawê, yê ji Kurdistana Iraqê, Namo Abdullah. Ev yek, bi amadebûna Banû Michelle Obama, wezîr û endamên Congres û Sênato. Ji berê, Namo Abdullah xwendekarekî zanîngeha amerîkî ya Columbia bû û nuha di rojnameyên cihê de dinivîse. 5 xwendekarên din, ku li Amerîka dijîn, xelat stendin.
*(Heftenameya Rûdawê, N° 145, 03.05.2012)*

***1mîn Xelata afirandinên nuh li Swîsra***

Kamyar Feramerzî, xwendekarekî endaziyê (hendese) li zanîngeha Kirmanşahê, li Kurdistana Îranê, Xelata 1mîn a yariyeke (yarış, musabaqa) navneteweyî ya afirandinên (çêkirin, îcad kirin, ixtira') nuh, ku li Jenêvê hat pêk anîn, stend. Feramerzî ayawê dirêjkirina maweya (muddet) şîrê kelandî yê li nav şûşeyan, bê ku taybetiyên xwe hunda bike, dît. 70 afirker (îcadker, muxteri'), ji 50 welatan, beşdarî yariya zanyariyî (ilmî), ku weka ya mezintirîn li cihanê tê dîtin, bûn.
*(rudaw.net, 02.05.2012)*

***1mîn Xelata Black International Cinema, li Berlînê***

***Ji 02 heta 06 Gulan***, li Berlînê, li Almanya, Fêstivala « Black International Cinema » bû. Fîlma kurt, « Dengê Baranê », ya fîlmçêkerê ji Kurdistana Îranê, Celal Saedpenah, Xelata 1mîn stend. Ew tê de merivekî bi navê Yadî, ku qefesên çivîkan çêdike û tenê dijî, nîşan dide. Zarokekî kêmendam (seqet), ê mongol, ji van çivîkan hez dike, lê Yadî wî ji wan dûr dixe. Di 2012 de, vê fîlmê Xelata Hêka Zêrîn li Fêstivala Navneteweyî ya Fîlmê ya Berlîn-Duhok, û Xelata baştirîn fîlma kurt li Fêstivala Fîlma Kurdî li Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, stendi bûn.*(peyamner.com, 16.05.2012)*

***1mîn Xelata Mêdya li Brîtanya Mezzin***

***Di 05 Gulan 2012 de***, Hîwa Mehmûd Osman, rojnamevanê (stûnnivîs) ê heftenameya kurdî Rûdawê, tevî 7 rojnamevanên din, Xelata Baştirîn Rojnamevanê Herêmî (Outstanding Contribution to New Media Award) stend. Ev yek di merasîmeke ku li Londonê ji aliyê Encumena Navneteweyî ji bo Çapemenî û Weşanê, ya Qewfa Sedsala Wêbê (International Council for Press and Broadcasting for hte Next Century Foundation) hat pêk anîn. Sekreterê vê rêxistinê, William Morris, got ku vî rojnamevanî ev xelat stend ji bo ku balan kişandin rewşa zor li Iraqê û ji bo ku wî bi pisporiyeke (ixtisas) gelek bilind azadiya çapemeniyê bi kar anî. Hîwa Osman gotarên heftane bi kurdî û ingilîzî dinivîse. Ji berê, ew « Birêvebirê Welatê Iraqê ji bo Enstituya Reportajên Şerr û Aşîtiyê » (Iraq Country Director for the Institute for War and Peace Reporting) bû. Û wî hevkariya BBC News jî, weka nivîskar û afirker (producteur), kiri bû.
*(rudaw.net, 07.05.2012)*

***1mîn Xelata fîlmeke belgeyî li Parlementa Ewropî, li Bruksêlê***

***Di 09 Gulan de***, fîlma "Unser Garten Eden" (Buhuşta me Eden), ya fîlmçêkerê kurd Mano Xelîl, 1mîn Xelata fîlma belgeyî, ya rêxistina mêdyayên ewropî, CIVIS, stend. 631 fîlmên ji 25 welatên Yekîtiya Ewropî hatin nîşan dan. Fîlm çîroka kesên ji 20 gelan, ku bi hevre li bexçeyekê, li bajarekî li Swîsra, dijîn dibêje. Ev yek ji bo ku nîşan bide ku "entêgrasyon" li Ewropa mumkun e.

Mano Xelîl Kurdekî Sûriyê ye. Wî xwendina huqûqê di 1994 de, li zanîngeha Şamê, kutah (xelas) kir. Ji 1987 heta 1994, sînema li Çêkoslovakya xwend. Ji 1996 de, ew li Bernê, li Swîsra, dijî. Wî gelek fîlm, ku hin ji wan xelatên navneteweyî stendine, çêkirin.
*(rudaw.net, rizgari.org, nefel.com, avestakurd.net, 13.05.2012)*

***1mîn Xelata fîlma kurd li Fêstivala Cannes***

Di 65mîn Fêstivala Navneteweyî ya Fîlmê li Cannes, Fransa, fîlma kurdî ya kurt « Bê Deng », ya fîlmçêker Rêzan Yeşilbaş, 1mîn Xelat, ji 4.500 fîlmên kurt, stend. Dema ku wî xelat stend, Yeşilbaş got ku *« Ez vê xelatê ji bo hemî jinên welatê min, ên bê deng û ku tenê hatine hiştin, hildigirim »*. Fîlm mercên (şart) jiyanê li zîndana Diyarbekirê, li Kurdistana Tirkiyê, di 1984 de (piştî darba leşkerî ya 1980) dibêje. Fîlmçêker ji Diyarbekirê ye û hunera têlêvîzyon û sînema li zanîngeha Marmara xwendiye.*(rizgari.org, 27.05.2012 ; netkurd.com, 29.05.2012)*

***Xelata Aşîtiyê ji komêdyenekî re, li Swêdê***

Rêxistina swêdî ji bo Aşîtî û Dyalogê « Eldh Ekblads » li Stokholmê xelata xwe da komêdyenê kurd ê navdar Özz Nûjen. Li ser sedema dayîna vê xelatê, rêxistin weha dinivîse : *« … Piştî ku meriv rastî Özz Nûjen li ser dikkê (sahne) dibe, tukes nikare vegere malê bê ku li bin kartêkirinê (te'sîr) be. Bi heneka xwe, ku weka çek bi kar tîne, ew me hemiyan neçar (mecbûr) dike ku em ji xwe pirsan li ser siyaset, ol (dîn) û mirovahiyê (insaniyyet) bipirsin. Kesên rêber weka Özz pêwîst in, ji bo ku rê ber bi cihaneke aramtir nîşan bidin »*.

Özz, weka xelat, 5.000 kronên swêdî stendin, lê wî ew dan kluba werzişa (spor) kurdî li Swêdê, « Dalkurd ».
*(netkurd.com, 28.05.2012)*

***Xelata serokê Ermenistanê ji nivîskarekî kurd re***

Di merasîmekê de, li saraya serokatiyê, serokê Ermenistanê, Serge Sarkisian, Xelata Edebî ya salane « Movses Xorenasi » da nivîskar û helbestvanê (şair) kurd, Elîxanê Memê, ku li Ermenistanê dijî.
*(rudaw.net, peyamner.com, 29.05.2012)*

***Xelata şaredarekî swêdî ji mamosteyekî kurd re***

Şaredarê bajarê swêdî Västerasö Xelata Pêdagojiyê da mamosteyê zimanê kurdî Heyder Diljen. Diljen li Swêdê zimanê kurdî hîn dike. Wî malpereke entêrnêtê bi navê « dibistana kurdî » vekir û nuha bernameyeke hînkirina kurdî ji bo IPhone, bi navê ABC Kurdî, amade dike. Di nêzîk de, ewê ev bernameya ku ji bo zarokên ji 18 mehî heta 16 salî hatiye amade kirin, ji bo sîstema têlêfonê « Android » jî bê çêkirin.

Ev bajar gelek girîngî dide hînkirina zimanê dayikî û her sal konfêranseke mamosteyên zimanê kurdî pêk tîne (li Swêdê, kurdî li dibistanan tê hîn kirin).
*(rudaw.net, 30.05.2012)*

**RADYOYA KURDÎ YA ERMENISTANÊ**

Beşên 4mîn û 5mîn ên rêzeya CD'yên stran û awazên (mélodies) radyoya kurdî ya Erivanê nuh derketin. Ew ji aliyê muzîkvan Cemîla Celîl û keça wê Naza hatine amade kirin. 3 CD'yên pêşîn di navbera 2001 û 2006 de hati bûn amade kirin. Birayê Cemîla, Celîlê Celîl, serokê Enstituya Kurdolojiyê li Vyênna, li Otrîşê (Avusturya, Nêmsa), got ku ji 1955 de, 1.500 ji van stranan hatine parastin. Bavê wî, Cesimê Celîl, berpirsiyarê rêdaksyonê yê radyoya kurdî ya Erivanê di navbera 1955 û 1963 de, ev karê qeydkirinê, tevî keça xwe Cemîla Celîl, berpirsiyara beşa muzîkê ya vê radyoyê di navbera 1967 û 2002 de, kiri bû.
*(aknews.com, 09.05.2012)*

**KEVNEŞOP LI KURDISTANÊ**

***Kurdistana Tirkiyê : Tora ava vexwarinê ya sedsala 13mîn***

Di dema kolanên li nêzîkî karên avakirina bendava (baraj) Ilisu, li ser çemê Diclê, li ciyê dîrokî Hesenkeyf, li nêzîkî Elihê (Batman), toreke (şebeke) ava vexwarinê û coyên (canalisation), ku ji sedsala 13mîn in, hatin dîtin. Professor Dr. Abdulselam Uluçam, rêktorê zanîngeha Elihê û berpirsiyarê kolanan, ji rojnama tirkî Vatan re daxuyand ku îro sîstemeke parzûnkirinê (filtrage, paqijkirin) ya ewqas baş nîn e.
*(rudaw.net, 12.05.2012)*

***Kurdistana Iraqê : 1.515 perçeyên kevnar***

Piştî 45 roj karên kolanan li saraya Qasrî Şemamikê, 30 km ji Hewlêrê, arkêologên fransî 1.515 perçeyên kevnar, ên ji kerpîç, bronz û hessin, dîtin : 20 perçeyên kerpîç ku li ser wan nivîsên mîxî hene, 1.414 şerbikên şkestî, 25 fincanên çayê, 2 guharên ji bronz, şeheke poran, 15 peykerên (heykel) piçûk ên mirov (insan) û lawiran (heywan), perçeyeke pere ji bronz … Li konfêranseke çapemeniyê li Muzexaneya Şaredariyan, li Hewlêrê, bi amadebûna balyozê Fransa, Frédéric Tissot, profêssorên arkêolojiyê … berpirsiyarên van kolanan daxuyand ku ewê karê xwe bajon (dewam bikin).
*(rudaw.net, 15.05.2012)*

***Kurdistana Iraqê : Perçeyên ji 600 sal Berê Zayînê***

Sekreterê mêdya, yê birêvebiriya arkêolojiyê ya navçeya Germiyanê, Muhammed Elî Seîd, daxuyand ku rûniştevanekî gundê Berlutê, li Rojhilata Kelarê, perçeyên cihê yên ku li erdê wî hati bûn çêkirin û veşartin dîtin : perçeyên gilover, serê marekê, kevvirekî gerdaniyekê û destgehên makîyajê (maquillage). Ew bawer dike ku dîroka van perçeyan vedigere 600 sal Berê Zayîna Îsa.
*(aknews.com, 21.05.2012)*

***Kurdistana Iraqê : Ruyê mirovekî yê 6.000 sal Berê Zayînê***

Berpirsiyarê arkêolojiyê yê bajarê Duhokê, D. Hesen Ehmed Qasimî, ji ajansa Peyamnêr re daxuyand ku peykerên (heykel) piçûk li şkeftên nêzîkî çemê Diclê hatin tîdin. Yek ji wan serê mirovekî ye û mêjuya (tarîx) wê vedigere 6.000 sal Berê Zayînê. Wî got jî ku ev ruyê mirov ê herî kevn e.
*(peyamner.com, avestakurd.net, 22.05.2012)*

***Kurdistana Iraqê : Perçeyeke pere ji 2.200 salan***

Sekreterê çapemeniyê, yê birêvebiriya arkêolojiyê ya navçeya Germiyanê, Muhammed Elî Seîd, got ku gundiyekî ji navçeya Germiyanê perçeyeke pereyê zîvîn, ku ji kêmasî ve vedigere 2.200 salan, li nêzîkî rûbarekî (çemê piçûk), dema ku wî li erdê xwe kar dikir, dît. *(aknews.com, 30.05.2012)*

**DÊFÎLEYA CILLAN LI KUÇAN, LI KURDISTANA TIRKIYÊ**

Di dema vekirina firoşgeheke (dikkan) naskirî ya cillan li qezayê Qoserê, ku girêdayî Mêrdînê ye, dêfîleya cillan li kuçan hat pêk anîn. Li ber gelheyeke (xelk) mezzin, ku nemaze (bêtir) ji jinan û cuhanan pêk hati bû, « mannequin », bi hogiriya muzîka kurdî, li ser riya Mêrdînê hatin û çûn.

*(rudaw.net, 13.02.2012)*

**FÊSTIVALA LÎZÊN WERZIŞÎ LI KURDISTANA ÎRANÊ**

***Ji 10 heta 12 Gulan 2012***, li Merîwanê fêstivala lîzên werzişî (spor) û dîlanên kurdî bû. Komên hunerî û sportîf ku ji bajarên cihê yên Kurdistana Iraqê, ji Xorasanê û navçeyên ne kurdî yên Îranê beşdarî wê bûn.

*(rudaw.net, 13.05.2012)*

**PARLEMENTEREKÎ KURD LI ALMANYA CAREKE DIN TÊ HILBIJARTIN**

Piştî hilbijartinên herêmî li Almanya, Arıf Ünal, parlementerekî kurd ê partiya Keskan, careke din li parêzgeha (wilayet) Nordrhein-Wesfalen hat hilbijartin.

*(rudaw.net, 14.05.2012)*

**ANTOLOJIYA HELBESTVANÊN JIN LI KURDISTANA TIRKIYÊ**

Weşanxaneya kurdî Ronahî, ku li Diyarbekirê ye, berhevoka (antolojî) helbestvanên (şair) jin ên her çar perçeyên Kurdistanê weşand.

*(avestakurd.net, 15.05.2012)*

**RÊXISTINEKE AMERÎKÎ 500.000 PIRTÛK DIDE KURDISTANA IRAQÊ**

Berpirsiyarê pirtûkxaneyên Kurdistana Iraqê, Ciwan Abdul-Azîz, ji ajansa Aknwes re daxuyand ku rêxistina amerîkî IRD ji wezareta perwerdeyê ya Kurdistanê re ji 500.000 pirtûk bêtir, ên fêrên cihê, bi ingilîzî, diyarî kirin. Û wî got jî ku ev pirtûk ewê li dibistan û navendên gihandinê yên Kurdistanê bên belav kirin.

*(aknews.com, 22.05.2012)*

**FÎLMEK LI 12 BAJARÊN ALMANYA TÊ NÎŞAN DAN**

***Ji 24 Gulan 2012 de***, ewê fîlma « Meş », a fîlmçêkerê ji Kurdistana Tirkiyê, Şiyar Abdî, li 13 eywanan, li 12 bajarên mezzin ên Almanya bê nîşandan : Achen, Berlin, Dortmund, Dresden, Frankfurt, Hamburg, Hannover, Köln, Munich, Nürnberg, Regensbur û Saarbrücken.

Vê fîlmê 4 xelatên navneteweyî li Fêstivala Portaqala Zêrîn li Antalya, li Tirkiyê ; li Fêstivalên Koreya Başûr, Kurdistana Iraqê, Ingiltere û Ispanya, stendi bûn. Ev cara yekemîn e ku fîlmeke bi zimanê kurdî li Tirkiyê tê nîşan dan. Ew hevaltiya di navbera dînekî ji Nuseybînê, Kurdistana Tirkiyê, û zarokan de dibêje. Bûyer vedigerin destpêka salen 1980, dema darba leşkerî li Tirkiyê.

*(netkurd.com, rizgari.org, 21.05.2012)*

**HINDIYÊN AMERÎKA LI KURDISTANA TIRKIYÊ**

Şaredarê Diyarbekirê, Osman Baydemir, pêşwaziya komeke muzîka Hindiyên Amerîka (Çermsor), Inka Sol, ku cillên neteweyî li xwe kiri bûn, kir. Wî ji wan re got ku Kurd jî ji pelixandinê gelek êşiyane û ku hin kes navê wan kiriye « Çermsorên Rojhilata Navîn ».

*(netkurd.com)*







Ev bulten, bi alîkariya Vlaamse Gemeenschapscommissie (VGC) û Fédération Wallonie-Bruxelles, bi kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî hatiye weşandin.